

# BUROYA KURDÎ
# ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 53 - Îlon 2009**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tél. 02 219 80 60
www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet.be

## NÛÇE JI KURDISTANÊ

**TEBAX 2009**

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**BÎRÊN MIRINÊ (dûmahîk)**
Di dema kolanên li gundê Akçayurtê, li parêzgeha Diyarbekirê de, hestiyên laşekî bê serî hatin dîtin. Tê bawer kirin ku ev laşê muxtarê kevn ê vî gundî, Mehmet Gülhan, ku di 1994 de hati bin çav kirin, e.

Li gora rojnamevanê rojnama tirkî Hürriyetê, Cem Emir, piştî binçavkirina vî muxtarî, haya tukesî jê ne bû. Kolan li ser daxwaziya kurrê muxtar, Hikmet Gülhan, li bal dozkarê (prokuror) dadgeha leşkerî, hat kirin. Hestî, ji bo venêrînê, hatin şandin servîsa bijîjkî (tibbî).
*(rizgari.org, 03.08.2009)*

**ZAROKEKÎ KURD NIKARE BIKEVE TIRKIYÊ**
Zarokekî kurd, Ciwan, ku li Stuttgartê, li Almanya, dimîne, tevî dê û xuşka xwe çû ber bi Malatya, Kurdistana Tirkiyê. Li firokexanê, ev zarok tenê hatin vegerandin Almanya, ji semeda navê wî ku tê de tîpa “W”, ku di tirkî de nîn e, heye !
*(avestakurd.net, 03.08.2009)*

**ERDOĞAN RASTÎ PARLEMENTERÊN KURD TÊ**
***Di 05 Tebax 2009 de***, Recep Tayyıp Erdoğan, bi sifeta serokê partiya islamî ya desthilatdar, AKPê, rastî serokê koma ku bi awakî ne fermî kurdî ye, DTPê, Ahmet Türk, û şanda ku pê re hat. Wezîrê hundir, Beşir Atalay, û cîgirê serokê AKPê, Bekir Bozdağ, hogiriya Erdoğan kir.



Rasthatin li buroya Erdoğan, li parlementê, bû û katjmêrek (saetek) ajot. Her du alî ji dyalogê razî bûn.

Berê çend rojan, wezîrê hundir rastî jimareke ronakbîrên tirk û kurd, ji bo bihîstina dîtinên wan li ser pirsa kurdî, hati bû.
*(Milliyet, Hürriyet, netkurd.com, avestakurd.net, nefel.com, peyamner.com, 05.08.2009)*

**ŞAREDAREKÎ KURD DIÇE SEREDANA KURDISTANA IRAQÊ**

***Di 10 Tebax 2009 de***, şaredarê Sûrê, ku şaredariyeke bajarê Diyarbekirê ye, Abdullah Demirtaş, tevî şandekê rastî parêzgarê Duhokê, Temer Ramazan, hat.

Seredan li ser vexwendina (dawet) parêzgarê Duhokê, ji bo xurtkirina pêwendiyên çandî, civakî … di navbera her du aliyan de, bû. Ewê şande biçe seredana jimareke sazendeyan, ji bo ku li ser rewşa servîsên vê parêzgehê agahdariyan bistîne.

*(peyamner.com, pukmedia.com, 10.08.2009)*

**162 WAJOYÊN RONAKBÎRÊN TIRK Û KURD**

***Di 11 Tebax 2009 de***, 162 ronakbîrên tirk û kurd daxuyaniyeke ku wan tê de piştgiriya xwe ji bo pêvajoya nuh ku ji aliyê berpirsiyarên fermî yên tirk, ji bo tecrubekirina dîtina çareyekê ji pirsa kurdî re, dest pê kiriye, nîşan da wajo (imza) kir.

*(Milliyet, netkurd.com, 12.08.2009)*

**WEZRÎRÊ HUNDIR RASTÎ PARLEMENTERÊN KURD TÊ**

***Di 13 Tebax 2009 de***, wezîrê tirk ê hundir, Beşir Atalay, bi hogiriya cîgirê serokê partiya desthilatdar AKPê, Abdulkadir Aksu, û cîgirê serokê koma vê partiyê li parlementê, Bekir Bozdağ, çû avahiya partiya kurdî DTPê.

Wezîr rastî serokê koma parlementerî ya DTPê, Ahmet Türk, û her du cîgirên wî, Selahattin Demirtaş û Banû Hatice Çoban, hat.

Her du alî ji giftûbêjan razî bûn û got ku divê ku pirsa kurdî bi awakî ramyarî (siyasî) bê çare kirin.

*(netkurd.com, avestakurd.net, pukmedia.com, radaw.net, nefel.com, 13.08.2009; Hürriyet, 14.08.2009)*

**ERDOĞAN LI SER HELBESTVAN Û STRANBÊJÊN KURD DIPEYIVE !**

***Di 13 Tebax 2009 de***, di civîneke koma parlemeterî ya partiya desthilatdar AKPê de, serokwezîrê tirk, ku di heman (eynî) demê de serokê vê komê ye, Recep Tayyıp Erdoğan, li ser biratiya di navbera gelên Tirkiyê de peyivî. Ew li ser helbestavanê kurd ê navdar ê sedsala 17mîn, Ehmedê Xanî, û stranbêjê îro, Şivan, peyivî û got ku stranên wan hestên (hiss) wî gelek rakirin !

*(avestakurd.net, 13.08.2009)*

**FÊRÊN KURDÎ LI ZANÎNIGEHA MÊRDÎNÊ**

***Berê mehekê***, 15 akadêmîkên tirk dest bi hînbûna zimanê kurdî li zanîngeha Artuklu, li Mêrdînê, kir. Mamoste, Dr. Selîm Temo, got ku wî ji wan re destgehên fêrbûnê yên taybetî amade kirine.

*(netkurd.com, avestakurd.net, 18.08.2009)*

**BERPIRSIYAREKÎ KURD TÊ TAWANBAR KIRIN**

***Di Tebax 2009***, dadgeha Riha (Urfa) serokê şaxa Riha ya partiya ku bi awakî ne fermî kurdî ye DTPê, Vakkas Dalkılıç, bi 11 meh zîndan, ji bo ku wî weşandina muzîka kurdî di civîneke vê partiyê de qedexe ne kir, hat tawanbar kirin.

Ev biryar li ser bingeha bend 81c a zagona (qanûn) li ser partiyên ramyarî (siyasî), ku weşandina bi zimanên ne tirkî di bûyerên ramyarî de qedexe dike, hatiye stendin.

*(rudaw.nl, 20.08.2009)*

**JÊPIRSÎNA KEÇEKE PIÇÛK**



***Di Tebax 2009 de***, dozkarê (prokuror) Komarê yê Diyarbekirê dest bi jêpirsîna keçeke kurd a piçûk a 10 salî, Medya Örmek, û dê û bavê wê kir, ji bo ku wê salek fêrên zimanê kurdî da zarokan û bawername (dîplom) dan wan !

Medya Örmek ev fêr, bi piştgiriya şaredarê Sûrê, Abdullah Demirtaş, li mala xwe dan. Wê daxuyand ku ew tirkî nizane û ku ewê li dadgehê bi kurdî bipeyive !

*(rizgari.org, 26.08.2009; avestakurd.net, rudaw.net, 27.08.2009; kurdistan-news.net, 29.08.2009; Milliyet, 30.08.2009)*

**BUROYEKE PARTIYA KURDÎ DTPÊ TÊ ŞEWITANDIN**

***Di 27 Tebax 2009 de***, nijadparêzên tirk buroya Riha (Urfa) a partiya DTPê şewitand, berdevkê vê partiyê, Ibrahim Ayhan, daxuyand. Û wî bi ser de jî got ku zararên maddî yên mezzin bûne.

*(azady.nl, 27.08.2009)*

## KURDISTANA IRAQÊ

**36.000 MALBATÊN EREB PENA BÛNE KURDISTANÊ**
Li gora serjimartinên (statîstîk) bawerbar, 36.000 malbatên ereb, ji Başûr û Navenda Iraqê, pena bûne (iltica) Kurdistana Iraqê. Her meh, çend malbat tên û 2-3 malbatên din jî ji bajarên Suleymaniye û Hewlêrê vedigerin ciyên xwe.
*(pukmedia.com, 06.08.2009)*

**ÊRÎŞ LI NAVÇEYÊN KURDÎ YÊN EREBKIRÎ**
***Di 06 Tebax 2009 de***, polîsê Kerkûkê daxuyand ku erebeke mînkirî li taxa Rahîmawa ya vî bajarî teqiya. 4 kes hatin kuştin û 35 jî birîndar kirin.
*(peyamner.com, pukmedia.com, 07.08.2009)*

***Di 10 Tebax de***, polîsê parêzgeha Nînewa (li Bakurê Mûsilê) daxuyand ku du erebeyîn mînkirî li gundê Xeznê, yê nahiya Bertelê, bajarê Hamadaniyyê, 30 kes kuştin û 130 jî birîndar kirin. Qurban Kurdên şebek (şîî) bûn.
*(peymaner.com, netkurd.com, azady.nl, 10.08.2009)*

***Di 12 Tebax 2009 de***, du têrrorrîst li qehweyekê li Şengalê, parêzgeha Mûsilê, ku tê de Kurdên yezîdî dimînin, xwe teqand. 17 kes hatin kuştin û 26 jî birîndar kirin. Berê du salan, di 14 Tebax 2007 de, erebeyeke mînkirî cardin li Şengalê 525 kes kuşti bûn û 700 jî birîndar kiri bûn.
*(peyamner.com, pukmedia.com, netkurd.com, avestakurd.net, rizgari.org, azady.nl, 13.08.2009)*

***Di 17 Tebax 2009 de***, bombeyek li ser karwaneke hêzên leşkerî li nêzîkî garaja Bexdadê, li Kerkûkê, hat avêtin. 8 kes birîndar bûn.
*(pukmedia.com, 17.08.2009)*

***Di 21 Tebax 2009 de***, têrrorîstek êrîşî Ehmed Ibrahîm Faris, jina wî û zarokên wan, li Daqûqê, parêzgeha Kerkûkê, kir. Jin û zarok bi giranî hatin birîndar kirin, birevebirê polîsê, Serhed Qadir, daxuyand.

Balyozê amerîkî li Iraqê, Christopher Hill, çû seredana Kerkûkê û tê de rastî berpirsiyarên ramyarî (siyasî) yên cihê hat, ji bo ku li ser rewşa ramyarî û ewlehiyê li Kerkûkê giftûbêj bike. Ew bi wan re li ser pêwîstiya hevjiyanê û biciânîna bendên destûra iraqî peyivî.
*(peyamner.com, 21.08.2009)*

***Di 29 Tebax de***, erebeke mînkirî li bazareke nahiya Sinûnî, li navçeya Şengalê, li nêzîkî Mûsilê, ku tê de **Kurdên** yezîdî dimînin, teqiya. 6 kes mirin û 40 jî birîndar bûn.
*(peyamner.com, rudaw.net, pukmedia.com, netkurd.com, avestakurd.net, 29.08.2009)*

**CARDIN PÊTROL LI KURDISTANÊ**
***Di 06 Tebax 2009 de***, şirketeke pêtrolê, Gulf Keystone, daxuyand ku wê li navçeya Şêxanê, li nêzîkî Duhokê, bîreke mezzin a pêtrolê, bi kûrayiya 1510-1450 m., ku tê de 300-500 milyon bermîl pêtrol hene, dît.

Pispor dibêjin ku ewê li gelek derên din jî li Kurdistanê bibînin.
*(pukmedia.com, 07.08.2009 ; avestakurd.net, 10.08.2009)*

**HILBIJARTINÊN SEROKÎ Û PARLEMENTERÎ (dûmahîk)**




***Di 07 Tebax 2009 de***, encamên dawîn ên hilbijartinên serokî û parlementerî li Kurdistana Iraqê, ku di 25 Tîrmeh 2009 de bûn, li Bexdadê ji aliyê Encumena Bilind a Serbixwe ya Hilbijartinan hatin daxuyandin :




- Mesûd Berzanî, Serokê Kurdistanê : 69,6%
- Lîsta Kurdistanî : 59 kursî, 59,2%
- Goran : 25 kursî, 24,5%
- Xizmetguzarî û Sazkarî (2 partiyên islamî û 2 marksîst) : 13 kursî, 13,2%
- Bizava Islamî : 2 kursî
- Azadî û Wekhevî : 1 kursî
- Bizava Tirkmenî : 3 kursî

*(peyamner.com, azady.nl, 07.08.2009; pukmedia.com, aknews.com, netkurd.com, avestakurd.net, nefel.com, 08.08.2009)*

***Di 20 Tebax de***, parlementa nuh civîna xwe ya pêşîn kir. Parlementerên nuh û serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, bi amadebûna serokê Iraqê, Celal Talabanî ; nimînendeyên ramyarî yên iraqî û balyozên (sefîr) çend welatên rojavayî û rojhilatî, sond xwar. Kemal Kerkûkî, cîgirê serokê parlementê yê berê, weka serok hat hilbijartin û sirûda neteweyî ya kurdî « Ey Reqîb » hat lîztin. Heta nuha, vê parlementê 92 zagon (qanûn) û 49 biryar derxistine.
*(TV, malper û rojnamên kurdî; Al-Hayat, 20.08.2009)*

**DU GORÊN HEVRAYÎ**
***Di 09 Tebax 2009 de***, di konfêranseke çapemeniyê ya hevrayî ya wezîra iraqî ya mafên mirov, Wijdan Mixaîl Salim, û wezîra kurd a Gorî (Şehîd) û Enfalkiriyan, Çinar Sa'd Abdullah, de Banû Salim daxuyand ku du gorên hevrayî ku tê de bermayiyên bi sedan Kurdên qurbanên Enfal hene li parêzgeha erebî ya Diwaniyya hatin dîtin.

Di vê konfêransa çapemeniyê de, Banû Salim daxuyand jî ku planeke sê qonaxan heye û ku yek ji wan bankayeke ku ewê jimara tevane ya qurbanên Enfalê bibîne ye. Her du wezîr li hev kir ku ji laboratwareke DNA li Hewlêrê bixwazin ku venêrînan (têst), bi hevkariya Enstituya Bijîjkî (tibbî) li Bexdadê, bike.
*(rûdaw.net, pukmedia.com, 10.08.2009)*

**NIMÎNENDETIYÊN 16 WELATAN LI KURDISTANÊ**
***Di 12 Tebax 2009 de***, berpirsiyarê pêwendiyên derve yên hukûmeta Herêma Kurdistana Iraqê, Fellah Mustafa, daxuyand ku 16 welat nimînendeyên wan ên dîplomatîk li Kurdistanê hene : 4 konsulxane, 3 buroyên balyozxaneyan (sefaret), 4 buroyên bazarganiyî û 5 konsulxaneyên rûmetê (fexrî). Û wî got jî ku sedemên vê yekê ewlehî (emniyyet) û aşîtî li herêmê, vebûna deriyên Kurdistanê ji welatên biyanî û civaka navneteweyî re, çalakiyên fireh ên bazarganiyî, hebûna ferzendên (firset) kar û têgihajtina van welatan rastiya Herêma Kurdistanê ne.
*(avestakurd.net, 13.08.2009)*

**SEREDANA WEZÎRÊ MISRÎ YÊ ABORÊ**
***Di 13 Tebax 2009 de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya wezîrê misrî yê aborê, Mehmûd Muhiddîn, bi hogiriya nimînendeyên 7 komên bazarganiyê, kir. Amanca vê seredanê xurtkirina pêwendiyên aborî, pîşesaziyî (sinaî), tûrîstîk ... bû.
*(pukmedia.com, 13.08.2009; krg.org, peyamner.com, rudaw.net, 14.08.2009)*

**SEREDANA ŞANDEKE PARLEMENTERÎ YA AMERÎKÎ**
***Di 15 Tebax 2009 de***, şandeke Kongrêsa Amerîkî, bi serokatiya sênator John McCain, çû Hewlêrê, piştî seredana Bexdadê. Ew tê de rastî serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, bi hogiriya serokwezîr Nêçîrvan Berzanî, serokê parlemena Kurdistanê û berpirsiyarên ramyarî yên kurd ên din, hat.

Mîrza McCain daxuyand ku amanca vê seredanê xurtkirina pêwendiyên di navbera Amerîka û Herêma Kurdistanê de ye û ku ew ji bo pêşveçûna mezzin a Kurdistanê gelek dilxweş e. Her du alî li ser hilbijartinên dawîn ên Kurdistanê û pêwendiyên bi Bexdad û Tirkiyê re giftûbêj kir.
*(peyamner.com, pukmedia.com, aknews.com, netkurd.com, avestakurd.net, 15.08.2009; nefel.com, Al-Hayat, 16.08.2009)*

**RAKIRINA QELENÊ LI BAL YEZÎDIYAN**

***Di 14 Tebax 2009***, di civîneke taybetî li Şêxanê, li Kurdistana Iraqê de, Encumena Rûhanî ya Yezîdiyan biryar stend ku qelena ku ji keçan re di dema mêrkirinê de tê dayîn gelek bê daxistin û ku bi nirxekî remzî (sembolîk), 75 gr. Zêrê 21 qîrat, bê sînor kirin.

*(pukmedia.com, 15.08.2009)*

**SEREDANA NIMÎNENDEYÊ YEKÎTIYA EWROPÎ**

***Di 23 Tebax 2009 de***, nimînendeyê Yekîtiya Ewropî li Iraqê, Elka Asitalo, bi hogiriya şandekê, rastî berpirsiyarên kurd ên cihê li Hewlêrê, Mesûd Berzanî, serokê Kurdistanê; Nêçîrvan Berzanî, serokwezîr, û Dr. Kemal Kerkûkî, serokê parlementa Kurdistanê, hat. Her du alî li ser hilbijartinên li Kurdistanê û pêwendiyên bi Bexdadê re peyivîn.

*(kurdistan-news.net, 23.08.2009; peyamner.com, avestakurd.net, 24.08.2009)*

**ZARARÊN ENFALÊ 8 MILYAR DOLAR IN**

***Di 26 Tebax 2009 de***, wezîra Gorî û Enfalê, Çidar Sa’d Abdullah, di konfêranseke çapemeniyê de daxuyand ku wezareta wê rapporek li ser zararên kampanya Enfalê ya Saddam Huseyn nivîsî û da hukûmeta iraqî li Bexdadê. Wê bi ser de jî got ku tevayiya van zararan digihêje 8 milyar dolar.

*(peyamner.com, 26.08.2009; avestakurd.net, kurdistan-news.net, 27.08.2009)*

## KURDISTANA ÎRANÊ

**DU HUKMÊN ÎDAMÊ**

Raşîd Axoknadî, ku bi xebata li dijî hukûmeta îranî û hevkariya komên dijberiyê (muxalefet) yên kurdî hatiye tawanbar kirin, di 01 Nîsan 2008 de li Isfahanê hat ragirtin û şandin zîndanê, bê ku mafê wî hebe ku parêzerekî bistîne. Piştî salekê, wî hukmê îdamê ji Dadgeha Şoreşgerî ya Sinê (Sanandaj), li Kurdistana Îranê, stend.

*(hra-iran.org, 06.08.2009)*

Şakir Baxî, girtiyekî ramyarî (siyasî) yê Tirkiyê, ku bi endambûna rêxistinên kurdî û haraşakirina (tehdîd) ewlehiya neteweyî hatiye tawanbar kirin, hukmê îdamê stend, bê ku mafê wî hebe ku parêzerekî bigire. Di 15 Tebax 2009 de, ew ji zîndana navendî ya Sinê hat birin a Kaşmarê.

Baxî di 11 Adar 2007 de li Sinê hati bû ragirtin. Ew sê mehan bi awakî gelek giran, bi canî û psîkolojîk (nefsî), hat êşkence kirin. Piştre, hat birin zîndana navendî ya Sinê. Du sal şûn de, azadiyeke sînorkirî jê re hat dayîn. Malbata wî, ji bo ku bitenê çend xulekan (deqqe) wî bibîne, ji Tirkiyê hat.

*(hra-iran.org, 16.08.2009)*

**MIRINA DU GIRTIYAN**

Mahmûd Rahmanî, Kurdekî Javanrûdê, piştî ku 8 sal li kampa penaberan El-Taş (li sînorê iraqî-urdunî) derbas kir, vegeriya Îranê. Dema ku gihajt, ji aliyê hêzên ewlehiyê hat ragirtin û ji bo hevkariya bi partiyên ramyarî yên kurdî re bi 15 sal zîndan hat tawanbar kirin.

Ji sedema salên pêşîn ên zîndanê, saxiya Rahmanî xerab bû, lê destûr jê re ne hat dayîn ku ew li derveyî zîndanê bê sax kirin. Piştî 8 sal zîndan, nexweşiya gurçikan a vî zilamê 70 salî ewqas giran bû ku ew hat azad kirin. Du hefte şûn de, ew li nexweşxanê, di 31 Tîrmeh 2009 de, mir.

*(hra-iran.org, 06.08.2009)*

Kamal Mohammed Pûr, girtiyek li bajarê Saqezê, li Kurdistana Îranê, li zîndanê hat kuştin û laşê wî li nêzîkî vî bajarî di 29 Tîrmeh 2009 de hat dîtin.

Par, Mohammad Pûr bi pevçûnên bi efserên (zabit) nizama vê girtîgehê re hati bû tawanbar kirin û hukmê 3 sal zîndan stendi bû.

*(hra-iran.org, 13.08.2009)*

**RAGIRTINEK**

***Di 31 Tîrmeh 2009 de,*** Roşan Alî Moradî, çalakvanekî ramyarî (siyasî), li Sareh Poleh Zahab, parêzgeha Kermanşahê, li Kurdistana Îranê, hat ragirtin. Wî kampanyake ramyarî ji bo sala 2009 dajot. Malbata wî tu nûçê ji wî ne stendiye.

*(hra-iran.org, 12.08.2009)*

**TÊKDANA ANTÊNÊN TÊLÊVÎZYONÎ**

***Di 04 Tebax 2009 de***, Rêxistina almanî ji bo Gelên Haraşakirî (tehdîdkirî) „GfbV“ daxuyand ku hêzên ewlehiyê yên îranî antênên têlêvîzyonî li Kurdistana Îranê têk dan (xerab kirin), ji bo ku nehêlin ku Kurd bigihêjin mêdyayên navneteweyî.

Li gora danişmendê (muşawir) GfbV, Dr. Kemal Sîdo, xelk dikare agahdariyan bitenê bi riya malperên entêrnêtê ku ji çavdêriya (kontrol) hukûmeta îranî derdikevin bistîne, lê ku ev bitehlike ye, ji bo ku pergaleke (sîstêm, nizam) rejîmê ya

çavdêrîkirina entêrnêtê ya pirr pêşketî heye. Li gora wî, kesên merd ên ku wê bi kar tînin dikarin bi bikaranîna „proxy-servers“, face-book.com yan youtube.com xwe ji parzûnkirina (filtrage) malperan dûr bixin, lê ku ew dikarin ji aliyê hukûmetê bên çavdêrî kirin. Rêxistinên îranî yên mafên mirov daxuyand ku 41 rojnamevan, 4 „bloggeur“ û xwendekarekî fransî hatin ragirtin, ji bo ku wan fotoyên xwepêşandanên dawîn li Îranê kişandin û ew bi riya e.mailê şandin.

Li Îranê, 60.000 kesên ku di warê „blog“ de çalak (aktîf) in û 23 milyon jî ku entêrênê bi kar tînin hene. Di dema hilbijartinên serokî li Îranê de, ji kêmasî ve 38 malperên nuh ên entêrnêtê ku bi zimanê farisî bi BBC, ku rûpela entêrnêtê ya gelerîtirîn e, re pêwendî dikir, hatin dîtin.
*(azady.nl, Ekurd, 07.08.2009)*

**ÎDAMKIRINA 13 KURDAN**
***Di 15 Tebax 2009 de***, Rêxistina Mafên Mirov li Îranê di malpera xwe www.hra-iran.org de navên 13 bazarganên ku ji aliyê hêzên ewlehiyê yên îranî di 20 rojên dawîn de li navçeyên sînorî yên Kurdistanê hatin kuştin weşandin. Sedema vê yekê ew e ku van bazarganan di 13 Tîrmeh 2009 de, bi hinceta bîranîna sersaliya 20mîn a kuştina Dr. Abdulrahman Qasimlû, firoşgehên (dikkan) xwe girtin (li bultena me ya buhurî binêre).

**TAWANBARKIRINA BEHAIYEKÎ**
***Di 19 Tebax 2009 de***, merivekî ku ola wî behaî ye, Zabihollah Raûfî, ji bajarê Sinê (Sanandaj), li Kurdistana Îranê, bi salek zîndan hat tawanbar kirin û birin girtîgeha Minaabê. Jêpirsîna wî bê pergaleke (nizam) zagonî (qanûnî) ya fermî û bê amadebûna parêzerekî (avukat) bû. Bi ser de jî, ji buroya polîsê dizzî ferman (emr) ji 18 kes ji heval û endamên malbata wî yên misilman re hat dayîn ku divê ku pêwendî bi malbata Raûfî re nekin.
*(hra-iran.org, 29.08.2009)*

**BOMBEKIRINA KURDISTANA IRAQÊ**
***Ji 21 heta 23 Tebax 2009***, leşkerê îranî ji nuh de navçeyên sînorî yên Berdênaz û Çiyayê Kodê ... li qezayê Hacî Umranê, li Kurdistana Iraqê, bombe kirin. Gelek zarar bûn.
*(pukmedia.com, 21, 23, 24 û 25.08.2009; peyamner.com, 24 û 25.08.2009; Al-Hayat, 25.08.2009)*

**SEREDANA GORA, SEROKEKÎ KURD, IHSAN NÛRÎ PAŞA**
***Di Tebax 2009 de***, ji bo bîranîna bangkirina “cihadê” ya Ayatollah Xomeynî li dijî Kurdên Îranê, Kurdên Tehranê çûn gora Gênêral Ihsan Nûrî Paşa, Kurdekî Tirkiyê ku serhildana kurdî ya 1927 a Çiyayê Agirî ajoti bû, û gul danîn ber we.

Di dema vê serhilana mezzin de, hêzên leşkerî yên tirkî û îranî bi hev re kar kir û rejîma îranî Ihsan Nûrî Paşa ragirt û bir Tehranê. Ew tê de heta mirina xwe jiya.
*(avestakurd.net, 27.08.2009)*

## KURDISTANA SÛRIYÊ

**BERPIRSIYAREKE KURD TÊ RAGIRTIN**
***Di 29 Tîrmeh 2009 de***, hêzên ewlehiyê yên sûrî ketin mala Banû Rojîn Remo li Menbêjê, li nêzîkî Helebê, û ew bin çav kir, Rêxistina Mafên Mirov li Sûriyê, MAD, di 02.08.2009 de got.

Banû Remo endama rêxistina jinan Stêrk e. Heta nuha çarenûsa (qeder) wê ne xuya ye.
*(Soparo/MAD, avestakurd.net, 03.08.2009)*

**DU SERBAZÊN KURD TÊN KUŞTIN**
***Di 09 Tebax 2009 de***, malbata serbazê (esker) kurd, Hogir Resûl Hiso, 22 salî, hîn bû ku kurrê wê di dema xizmeta leşkerî de mir û ku sedema vê yekê kontakteke êlêktrîkî bû !

Ev nûçe ji aliyê Rêxistina Kurdî ya Mafên Mirov li Sûriyê, MAF, hat weşandin. Hiso ji 8 mehan de xizmeta leşkerî li Quteyfê, li nêzîkî Şamê, dikir. Ew li Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê, hat gor kirin.

Ev serbazê 26mîn e ku ji dema serhildana kurdî ya 2004 de tê kuştin.
*(Soparo/MAF, avestakurd.net, 10.08.2009)*

***Di 14 Tebax 2009 de***, heman (eynî) rêxistina kurdî MAF daxuyand ku Ehmed Mustafa Ibrahîm di dema xizmeta leşkerî de hat kuştin. Berpirsiyarên leşkerî got ku wî xwe bi çekkê xwe kuşt ! Ev xort ji 8 mehan de xizmeta leşkerî dikir. Ew li gundê Goranê, li navçeya Efrînê, li Kurdistana Sûriyê, hat gor kirin.
*(avestakurd.net, 14.08.2009)*

**BERPIRSIYARÊ PARTIYEKE KURDÎ TÊ RAGIRTIN**
***Di Tebax 2009 de***, sekreterê giştî yê Partiya Kurdî ya Çep, Muhammed Mûsa, li Dirbêsiyyê, li Kurdistana Sûriyê, hat ragirtin û radestî (teslîmî) Dadgeha leşkerî ya Qamişlî kirin. Ji wî derî, ew hat şandin zîndana vî bajarî.

Ji bo ku ew ji berê jî hati bû girtin û piştre, berê ku maweya (muddet) girtina wî kutah (xelas) bibe, hat berdan, ji nuh de hat girtin !
*(avestakurd.net, 13.08.2009)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ

**MIRINA STANBÊJÊ ERMENÎ ARAMÊ TIGRAN**



***Di 07 Tebax 2009 de***, stranbêjê ermenî yê navdar, lê ku bi kurdî distira, Aramê Tîgran, li nexweşxaneyeke Atîna, li Yûnanistanê, ji sedema rijîna xwîna serê xwe, mir.
*(netkurd.com, avestakurd.net, pukmedia.com, rudaw.net, 08.08.2009)*

Aram li Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê, di 1934 de bû. Malbata wî ji sedema nijadkujiya ermenî ji Kurdistana Tirkiyê Reviya bû. Hezkirina wî ji muzîkê di 9 saliya wî de dest pê kir. Wî nemaze bi kurdî, lê bi erebî, ermenî û tirkî jî, distira. Berhemeke pirr mezzin li paş xwe hişt : 11 album, 237 stranên kurdî, 150 yên erebî, 10 suryanî, 8 yûnanî … Ji derveyî Kurdistana Sûriyê, ew li Ermenistan, Beljîka û Yûnanistanê jî jiya.

Aram dixwest ku li goristana ermenî ya Diyarbekirê, li Kurdistana Tirkîyê, bê veşartin, lê desthilatên tirkî ev yek ne hişt, ji bo ku netewahiya wî ya tirkî nîn bû. Loma, li ser daxwaziya malbata wî, ew li Bruksêlê, li Beljîka, di 17 Tebax de, bi amadebûna jimareke mezzin ji Kurd û Ermeniyan hat gor kirin.

*(netkurd.com, avestakurd.net, 11 û 17.08.2009 ; info-turk.be, 14.08.2009)*

**FÎLMEKE KURDÎ LI ALMANYA**
***Di 13 Tebax 2009 de***, fîlma fîlmçêkerê kurd Araş Riahî, « Qêliyek azadî », li eywanên sînema yên bajarên almanî yên cihê hat nîşan dan. Ew rêwîtiya zor a du malbatan, kurd û faris, ji Îranê ber bi Otrîşê (Avusturya, Nêmsa), dibêje.

Fîlm 110 xulek (deqqe) dajo. Ew bi kurdî û farisî û bi sernivîsên almanî ye. Heta nuha, wê 6 xelatên navneteweyî, ku ji wan xelata baştirîn fîlm li Fêstivala Vyênna, stendine.
*(netkurd.com, 13.08.2009)*

**DÎLANÊN KURDÎ LI POLONYA**



***Ji 07 heta 08 Tebax 2009***, 11mîn Fêstivala Navneteweyî ya Tatarên Polonya « 11th Summer International Lore Academy of Polish Tatars », li bajarê Sokolka, navçeya Podlasya, li Polonya, bû. Ew ji aliyê Rêxistina Tatarên Komara Polonya, desthilatên navçeyî û navendên çandî yên Sokolka, li bin patronaja serokê polonî, Lech Kaczynski, bû.

***Di 08 Tebax de***, mêvanên ji Kurdistanê çûn seredana goristan û mizgefta misilman a Bohoniki. Piştî nîvro, komên dîlanên folklorîk ên lituanî, byêlorûsî, bosniyakî, tatarî û kurdî beşdar bûn vê festivalê.
*(krg-polonya, peyamner.com, 13.08.2009)*

**PÊŞANGEHEK LI ZÎNDANÊ**



***Di 13 Tebax 2009 de***, merasîma dayîna bawernameyan (diplom) ji koma 12mîn a akadêmiya leşkerî ya zîndana Sûsê bû. Ev zîndan a hukûmeta fêdêral a iraqî ye, lê li nêzîkî Suleymaniyê, li Kurdistana Iraqê, ye.

Bi vê hincetê (munasebet), girtiyekî kurd, Huseyn Fiqa, 98 tabloyên xwe li hundirê zîndanê, bi amadebûna ronakbîr, hundermend û rojnamevanan, raxistin. Vekirina pêşangehê ji aliyê Cewher Kirmanc, nimînendeyê Celal Talabanî, serokê Iraqê (kurd), ji bo çand û agahdariyê, hat kirin.

Huseyn Fiqa ji Kurdistana Sûriyê ye. Berê çend salan, ew ji aliyê serbazên (esker) amerîkî li Tel Koçer, li sînorê sûrî, hati bû ragirtin û radestî (teslîmî) dadiya (edalet) iraqî kirin. Dadmendekî (hakim) şovînî ew bi 15 sal zîndan tawanbar kir. Lê Fiqa hîn jî ji hundirê zîndanê, bi riya wênekêşiyê (resm), hezkirina xwe ya ji Kurdistanê nîşan dide.
*(avestakurd.net, efrin.com, 14.08.2009)*

**5 BÛRSÊN XWENDINÊ JI ZANÎNGEHEKE ALMANÎ**
***Di 13 Tebax 2009 de***, zanîngeha almanî ya Dortmundê biryar stend ku 5 bûrsên xwendinê di warên abor, çandin, zanist, endazî û enformatîkê de, ji bo sala 2010-2011, bide Kurdên Iraqê.

Ev biryar di dema seredaneke şandeke wezareta perwerdeya bilind a Herêma Kurdistana Iraqê de, bi serokatiya wezîr Idrîs Hadî, hat stendin.

Nuha, 3 xwendekarên kurd ên zanîngeha Duhokê li Dortmundê dixwînin.
*(pukmedia.com, 14.08.2009)*

**FÊRÊN ZIMANÊ KURDÎ LI KURDISTANA SÛRIYÊ**



Derwêşê Xalibê Derwêş, endazekî (muhendis) enformatîkê, di hevpeyvîneke Silêman Demir di 2007 de pê re de, daxuyand ku ji 2003 heta 2007, 5.800 Kurd xwendin û nivîsîna kurdî hîn bûn û bawername (diplom) stendin.

Piştî ku Derwêş xwendina xwe ya zanîngehî li Parîs û Pragê kutah (xelas) kir, ew di 1977 de vegeriya

Qamişlî, Kurdistana Sûriyê. Di 2003 de, wî Komîta Fêrbûna Zimanê Kurdî ava kir. Fêr li navçeyên cihê yên Kurdistana Sûriyê û li Beyrûtê, li Lubnanê, bûn. Hin ji yên ku bawername stend, bi dora xwe bûn mamoste.
*(avestakurd.net, rizgari.org, pukmedia.com, 21.08.2009)*

**MALPEREKE KURDÎ YA MATÊMATÎKÊ**
Malpereke entêrêntê ya zanyarî (ilmî) bi kurdî, www.mamematikakurdi.com, nuh ji aliyê Hasan Güneyli, endazekî (muhendis) êlêktrîk û êlêktronîkê, hat vekirin.
*(kurdistan-news.net, 25.08.2009)*

**OPÊRAYEK BI KURDÎ**

Casimê Wezîr, Kurdekî Gurcistanê ku li Almanya dijî, opêrayek li ser bingeha çîroka kurdî ya navdar, _einde kolonnen_ Evdalê Zeynikê, dinivîse. Û ew rêzefîlmekê, bi hevkariya 30 kesan, jî çêdike.

_(Kovara Rûdaw, 25.08.2009)_




Ev bulten, bi alîkariya Vlaamse Gemeenschapscommissie (VGC), bi kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî hatiye weşandin.